# Rêberekî demokrat û çep




**Ehmed Şêrbegî**

Bas kirin ji kesatiya Dr. Seîd hewcehî bi derfetek zêdetir heye û li nivîsek kurt de ne mumkin e ez bikarim basa hemû aliyên jiyana wî bikim, lewre neçarim zor bi kurtî îşare bi nêrîna navhatî bikim ku bal min ya herî diyar û girîn e û ez dikarim bibêjim ku çarçove û stroktora hizrî a Dr. Şerefkendî li ser veyî ramanê şikil girtibû, ew jî hizra netewexwazî û kurdatiya navhatî bû.

Em hemû dizanin ku Dr. Seîd li çarçoveya malbatek niştimanparêze kurd da çavê xwe bi dunyayê re vekir. Hêj zarok dibe ku agirê şerê duyem ê cîhanî peşqelan dawêje. Nazîsm li Almanê û faşîzm jî li Îtalya şikestê dixwe. Hêza hevalbendan, anku supaha soviyetê li bakûr û Îngilîs jî li başûr xaka Îranê dagîr dikin. Reza şa li kursiya desthilata paşatiyê dikewe û tê dûrxistin, nermebayê rizgariyê li gelek li welatan de dest pê dike û hizra xweserî xwaziya gelên çewsandî û yek ji wan jî gelê kurd li Kurdistana bindeste Îranê vedigeşe û bi awayekê ku avabûna Komara Kurdistanê li Mehabadê lê dikewe.

Ji aliyê din ve Dr. Şerefkendî birayê biçûk yê Ebdulrehman Şerefkendî ''mamosta Hejar''helbestvanê niştimanî ê Komara Kurdistanê ye. Tesîr û karîgeriya kesek wekî Hejar û dîtina hildana alaya komara Kurdistanê li ser dem û dezgehên hikûmetî û çûna bo qutabxaneya kurdî û xwendina bi zimanê zikmakî û bihîstina sirûda netewî a ''Ey Reqîb'' dibine sedem ku Dr. Şerefkendî her ji temenê zarokatiyê ve mejiyê wî tejî be û tevlî seqa û atmosfera siyasî û kurdatiyê be û yekem kewirê xîmê koşka kurdayetiyê li derûna wî de ava bibe. Bi awayekê çi wê dema ku dibe mamosta û li warên cur bi cur de ders gotiye û çi wê demê ku bi kiryar tê qada xebatê û tekoşîna siyasî a xwe bi eşkere dest pê dike û paşan dibe kesê yekem ê hizbê. Ew hizra netewexwazî bi tewahî li rabûn û rûniştin û nivîsên wî de derdikewein.

Dr. Şerefkendî şehrezayiyek tewaw li ser dîroka kurd heye û xwendin û têgihîştinek zanistî li ser dîroka serhildan û têkçûna tevgerên kurd dixe berçav. Wî li pirtûka ''kurte dîrokek li ser tevgerên kurd'' de îşare bi sedemên serhildan, kêmasiyan û têkçûnên wan tevgeran dike, lewre li qada piratîk de nêrînek zanistiyane û realîstane mêzeyî pêşeroja kurd dike.

Dr. Şerefkendî bona dabîn kirina mafê çarenivîsa kurd li Îrana pêşerojê de naçe jêr alaya tu bereyekê ku aliyên vê eniyê bawerî bi çaresera mafê netewî nebin.

Zor bi lêbrawî hîlek sor bi ser hizra seltenet xwaziyê de dikşîne û bo hertim ew sîstem bo pêşeroja Îranê ret dike. Navhatî bi xwendinek hûr ku li ser vê têgihê hebû dizanî ku dabînkirina mafê netewî û diyarî kirina çarenivîsê li gel hizra paremayî a seltenetî li natebayiyê de ye û bi tu awayekê nikare xwe bi sîstema piloralîsma siyasî a gelên Îranê biguncîne.

Piştre jî zor lêbrawtir û zelaltir ji wê, li ser mafên netewî ên kurdan diaxive bêy wê ku tu şik û gumanekê bal kesekê biafirîne bi eşkere dibêje: Eva raste ku Îran bi dirêjahiya dîrokê ji yekîtiya netewên cuda cuda pêk hatiye, lê tu tiştek heta heta nine. Çi sedemek heye eger çend netewe piştî 1500 sal bihevre jiyanê, nebe ku ji hev cuda bibin û cuda ji hev bijîn? Mesela eslî ew rewşa ye ku niha li rojevê de ye.

Dr. Şerefkendî biwêrane û ji rûyê agahî ve bawerek tewaw bi serbexweyî û yekîtiya Kurdistanê heye.

Wê demê ku kesê yekem ê hizbê bû, bi bê tirs û nîgeranî ve alîkarê vê beşa kurdistanê bû ku hewcehî bi alîkariya hizba demokrat hebûye. Zaf caran li vî cihî ku hewce bûye bi qazanca netewî xistiye pêş berjewendiya hib ayetiyê ve, her çiqas ku li vê riyê de jî bac jêre daye.

Dr. Şerefkendî li rê û resma 10 saliya avabûna Radyo Dengê Kurdistana Îranê de dibêje:

Dibe em şanaziyê bi xwe bikin ku kurd in. Xebat bo mafên netewî, xebatek pîroz û rewa ye. Tenê kurde ku îro bi kiryar li qada siyasî a Îranê de bo azadiyê xwînê dirijîne û qurbaniyan dide. Ku waye tu kes nikare li Îranê de xwe bi ser kurdan de ferz bike. Ez wekî kurdekê ne li tu kesekê kêmtir im ne jî zêdetir...

Ew gotara Dr. Şerefkendî wê demê girîngiya xwe derdixe û erzişa wê derdikewe ku li vê serdemê de hêlên hizrî ên çepa kilasîk li çarçoveya sosyalîzma mewcûd de bal bi ser seqaya siyasî a Îranê de kêşa bû û bîra netewexwazî û diyarîkirina mafê çarenivîsê li nêrîna gelek hêz û aliyên Îranî ên ser bi vê rêbaza fikra paşketî û îrticaî de pênase dikir.

Dr. Şerefkendî li vê çeperê de jî bêy wê ku bikewe jêr givaşa van teoriyan, ji bîr û hizra netewexwazî bi hemû awayekê berevanî dikir û helwest digirt. Li dawiyê de rastî û duristiya vê hizra Dr. Şerefkendî ji hemû aliyekê re hat selimandin û derket û me dît ku çawa hesta netewî û serbixwe xwaziyê li nav gelên cemsera rojhilat de ku zêdetir ji 70 salan bêdeng û fetisandibûn, teqiya û bû bi sedema herifîna vê eniyê û cudabûn û avakirina dewleta serbixwe a xwe.

Bona wê ku vê basê bi dawî bînim dibêjim: şehîd dr. Sadiq Şerefkendî kurdekî demokrat û çep bi manaya tewaw a peyvê bû. Bawerek kûr bi avakirina civakek dadperwerane li ser bingeha sosyalîzma demokratîk hebû.

Bona vê meremê jî gelek biwêrane û lêbrawane piştewanî ji bîrokeya ''kurte basek li ser Sosyalîzmê'' kir ku ji aliyê şehîdê serkirde, dr Qasimloyê zana li Kongireya şeşemîn a partiyê de hate rojevê.

# Rojev

## Dîplomasiya Îranê

**N: Hemîd Aqayî**
**W: Rûken**

Şikest û sernegirtina gotûbêjên navbera Komara Îslamiya Îranê û welatên Rojawayî û bi tenê mana rejîmê li asta navnetewî de li pileya yekem de vedigere ser neşiyaniya dîplomatên Îranê, reh û rîşeya wan sernekevtina û nezanînan divêt em li dîplomasiya Komara Îslamiya Îranê û sîstema îdeolojîk û dînî ya wan de peyda bikin. Di vê babetê de nivîskar cehd kiriye ku rolê olê Îslamê li warê dîplomatîk û siyaseta dereke de bixe ber lêkolînê.

Li yek ji wan lêkolînan de ku li wan dawiyane de li aliyê beşa birêveberiya malî ya binkeya teknolojiya "Çongyo" li Taywanê de pêk hatiye, berhevdan û qiyas kirink li warê şêweya dîplomatîk ji hizirgeha mesîhiyet, Îslam û bodîsmê ve hatiye kirin. Ew lêkolîn nîşan dide ku bawerên olî û îdeolojîk li dîplomasiya Îslamiyetê de li çav mesîhiheytê gellek karîgerî û bandor li ser pêvajoya dîplomatîk hebûye. Herwesa derketiye ku dîplomasiya Îslamî bara pitir li ser baweriyên olî disekine.

Dîplomatên Misilman hêz û şiyanek pirr baş li dema karê dîplomasiyê de hene. Herbet ne li ser bingeha fakt û rastiyên rojê, belku li ser bingeha mentiq û hizra rawestiyayî li ser îman û bawerên olî. Dîplomatên mesîhî şêweyên sade û îhsasî lidema gotûbêjan de bikar tînin, lê dîplomatên Misilman bara pitir bi axavtinên giran dikevne nava gotûbêjan de.

Pêdaçûnek bi ser dîroka Îslamê ji dema peyda bûna Îslmaê ve nîşan dide ku olê Îslamê her demê tenê şêweyeke dîplomatîk û taybet bi xwe bilav dikir û teblîx jêre dikir. Dema ku pêxemberê Îslamê hêz û deshilata xwe li medînê de seqamgîr û qahîm kir, hinek nûnerên xwe şandin Îran û Misr û Hebeşê, û li nameyekê de daxwaz li wan kir ku olê Îslamê qebûl bikin, her çend wê demê ew yek resm û adet bû ku li dema destpêkirina gotûbêjên siyasî li navbera du dewletan de rêberên wan welatan hinek diyarî ji bo yektir birê dikirin, û bi vî awayî riya gotûbêjan vedikirin. Lê olê Îslamê her li destpêkê de dîplomasiya wê li ser bingeha gazî kirina xelkê ji bo Îslamê û bi gotinek din berfireh kirina Îslamê hate avakirn. Ew şêweya dîplomasiyê ji bo welatên derdor û heta deshilatên mezin ên wê demê ne tenê cihê nîgeraniyê bû belku bo wan deshilatan ku ayînê xwe hebûn, wek ragehandina şer bi dijî wan û wek deshilatxwazî dihate hisabê.

Lêkolîna li ser edyanêt Îbrahîmî bi başî nîşan dide ku pêwendiya Xwedê li gel pêxemberên wî, her car bi awayek taybet nebûye, li gorî mitonêt olî Xwedayê mezin Îbrahîmê Xelîl bo mozakire û gotûbêjan gazî dikir, da ku bi vî awayî bikare qewmên biberçav tawanbar ceza bike.

Piştî hezretê Îbrahîm pêwendiya Xwedayê mezin li gel pêxemberên xwe, wate di gel Mûsa, Îsa û Mihemed bi sê awayên curbicur bûye.

Firîmên Kilark lêkolerê dîroka mezheban, û danerê pirtûka bi navê mesebên mezin wan sê rastiyan weha şirove dike:

Xwedayê Mûsa hêzeke tirsnake ku her tim li nav bendên xwe de jiyanê dike û şirîkê tewaya rastiyan û şaşiyên wan e, xwedayê Îsa jî hinda serê wan e, û hem jî li nav derûna wan de ye, û xwedayê Hezretê Mihemed li hinda serê wan e û wek fermanrewayek reha bi wan re diaxive.

Heke Xwedayê Cihûyan bi her awayekê piştevaniya Cihûyan bike, Xwedayê Îsa jî wek xwedayek bexşende xwe di nav dilê wan de cih dike.

Xwedayê Mihemed li gel Xwedayê Cihuyan hewbeşiyên pitir hene, helbet ji bilî vê ku li nav esmanan de dimîne û ji riya şandina wehyê ve hukm û biryaran dide. Ew Xwedayê ku li gorî rewşa ku têde ye hem şer û hem jî aştiyê bi dana sozên çûna bo Beheştê warê şer'î didê, û bi tewahî pişta peyamberê Îslamê li her warekî de digre bona berfireh kirin û geşe kirina Îslam.

Mirov dikare kartêkirina ol li ser siyaseta li dîplomasiya li navbera dewletên Îsraîl û Komara Îslamî de jî bibîne. Her du alî jî qet sazişê nakin û bingeha dîplomasiya wan jî îdeolojiya wan e.

# Ferq û cudahiya sîstimatîk li dijî jinan di yasaya Komara Îslamî a Îranê de

Peyxam Hişmetî

Maşîna serkuta Komara Îslamî a Îranê bi hemû alavên ku di dest de hene, hewil dide ku ferq û cudahiya civakî zêde bike. Zêdebûna ferq û cudahiyê di Îranê de, ji serdemê bihêzbûna Komara Îslamî a Îranê û refrandoma yasaya bingehîn di 10'ê Xakelêweya sala 1358'an de dest pê dike û dibe beşek ji yasaya civakê.

Esla duyemîn ya yasaya bingehîn derheq yeksaniya jin û mêran, li gor nêrîna Îslamê ye û di wî warî de dibêje ku tewahiya takên civakê pêkhatî ji jin û mêran, weke yek ji yasayê mifahê werdigrin û ji tewahiya mafên însanî, siyasî, abûrî, civakî û çandî, bi liberçavgirtina desturên Îslamî mifahê werdigrin. Serbarê vê yekê yasayên hiquqî û cezayî di Komara Îslamî a Îranê de, tijî ye ji pesendkiriyên ku li gor yasayê, mirovatî û kerameta însanî ya jinê di Îranê de kêm dike.

Mixabin jin di Îranê û di çarçoveya yasaya bingehî ya xwedî ferq û cudahî de, ku digel yasayên mafê mirov û konvansiyonên nehêlana ferq û cudahiyên dijî jinan dijatiyê dike, serbarê vê ku piraniya mafên xwe ji dest dan, çi weke jin û çi weke dayîk xisarên zaf dîtine.

Komara Îslam bi hikumet û yasayên xwe, nêrînek li gorî sedsala navînî derheq jin û dayîkan di civakê de derdixe holê, û jinê dike bende û ewdek ku xwedayê wê yê biçûk mêr e, û dayîkbûna wê jî vedigerînin ser berdewamiya za û zêyan.

Dayîkek ku ji bilî sebr û zehmetiyên zaf û berdewam û helbet soza beheşta piştî mirinê jî, tu tiştek din nabe nisîbê wê. Eva di demekê de ye ku di weletên pêşketî de, jin rola mirovek serbest dilîze, û li jinbûn û li za û zêya xwe weke babetek xwezayî û civakî dinêre.

Di sedsaliya 21'an de ku di piraniya welatên cîhanê de, jin heta di birêvebirina hikumetê de xwedî rol in, û digel mêran berambar in, lê hikumeta Îslamî piştî ku dest bi ser welat de girt, bi bêşermiyek eşkere xwendin û şirove di wan rişteyê xwendinê de bo jinan qedexe kir, û yasayê ev ji hin perwerde û dersên wan riştan bêpar kirin.

Guhertina Baxçeyên zarokan bi nawendên mezhebî, bi liberçav girtina cudahiyên regezî, babetek din e ku peywendiyek rasterast bi rêgirtina ji jinan bo xwendina di zanîngehan de ye.

Berpirsyarên Saziya Bêhzîstiyê bi tenê îzna avakirina baxçeyên zarokan, telebeyên jin û heyetên mezhebî û mizgewtan didin, da ku bi vê mêtodê bikarin mêjiyê zarokên sê çar salî bi perwerdeya bi zorî a Quran û dersên mezhebî bişon û wan li gor îdolojiya dînî ya xwe perwerde bikin û bikar bînin.

Heya ku bikarin bi perawêzxistina jinan di nawendên perwerdeyê de li gor gotinên Ehmedînejad û Xamineyî derheq kontrolkirina nifûsê di Îranê de, li jinan maşîneke bê can û bê hizir bo za û zêyê çê bikin.

Di biryara dawî a Komara Îslamî de, ji aliyekê hezifkirina jinan di 77 rişteyên xwendinê de, li zanîngehan û ji aliyê din ve guhertina baxçeyên modern ên zarokan bo maktebxaneyên li gorî sedsalên navîn û sepandina mazheba hikûmetî bi ser zarokan de, peywendiyek organîk bi hevre hene, û eve jî vê yekê diselimîne ku hikumeta Komara Îslamî ji hizr û nêrîna sedsalên navîn pêk hatiye.

Hikumetek ku rojên despêka hatine serkara wê hevdem e digel sedsala giringîdan bi buhayên însanî û mafê mirov di cîhanê de.

Hikûmetek ku yasaya bingehîn ya xwe li ser esasê ferq û cudahiya regezî, mezhebî û çandî dabirêje û di kakil û cewherê xwe de, dijî carnameya cîhanî a mafê mirov e.

Di rastî de kiryarên mirovî û civakî yên ku rêberê Komara Îslamî û pêrewên wê, diruşma encamdana wê didin, bê bingeh û direwîn in.



## Îranê xelata kuştina Selman Roşdî zêde kir

**Rejîma Îranê nîv milyon dolar bi vê xelatê ve zêde kir ku ji bo kuştina Selman Roşdî nivîskarê bi esil Hindî ku niha li Birîtanya de dijî, berçav girtibû, û ew xelat gihande sê milyon û 300 hezar dolarî.**



Li gorî nûçeyan Şêx Hesen Saniî berpirsê "nawenda 15'ê Xurdad" û nûnerê Elî Xamineyî ev nûçe bilav kiriye. Wî herweha ragehandiye ku heke fetwaya kuştina Selman Roşdî bihata cîbicî kirin niha êdî tu kesî nedikarî bi karîkator û filîman bê hurmetiyê bi Îslamê bike.

Xomênî di sala 1988'an de fetwaya kuştina Selman Roşdî bi egera weşandina pirtûka bi navê Ayetên Şeytanî derkir.

## Xelata 25 milyon dolarî bo radestkirina Beşar Esed



**Yek ji fermandeyên Ertêşa azad a Sûriyê ragehand ku dijberên hikumetê 25 milyon dolar li hember radestkirina Beşar Esed bi zîndî yan jî mirî diyarî kirine.**

Ehmed Hicazî, yek ji fermandeyên ertêşa azad di gotobêja digel nûçegehaniya Anatoliyayê de ragehand ku, hijmarek ji sermayedarên Sûrî ên akincî li derve û hundurê Sûriyê, ku piştewaniya dijberên Eseb dikin, garantiya tehvîldan vî diravî kêşane stûyê xwe.

Navbirî eşkere kir ku seba parastina babetên ewlehî ew nikarin navê wan sermayedaran bînne ziman.

## 160 parlemanterên Îraqê bo cara duyemîn zewicî ne

**160 parlamênterên Îraqê piştî ku bûne endamê parlementoyê, bi awayek fermî bo cara duyên zewicî ne, û jina duyemîn ji xwe re anîne.**

Mihemed Xalidî biryarderê parlementoya Îraqê ragehand ku 60 endamên parlementoyê piştî ku di helbijaretinên sala 2010'an de, weke parlemanter hatin hilbijartin, bi awayek fermî jina duyemîn anîne.

Necîbe Necîb, endama parlementoya hevpeymaniya Kurdistanê, di parlementoya Îraqê de bi tundî rexne ji wan parlemanteran girt ku bo cara duyemîn zewicî ne.

Hindek ji parlemanteran jî pitir ji du caran zewicî ne, bi awayekê ku cuda ji wan 60 endamên parlementoyê, 100 endamên din jî bi awayên nihênî û nefermî ji xwe re jin anîne, ku beşek ji wan serkirdeyên kotleyên siyasî di Îraqê de ne.

Kesatiyên berçav ku piştî bûne parlementar, jinên din ji xwe re anîne, bi vî awayî ne;

-Elî Bapîr Wetman, Emîrê Komela Îslamî û Serokê Firaksiyona Komela Îslamî li Bexdayê

-Cewad Elşehîlî, Parlemanterê rewta Sedir

-Hemze Dawûd Selman, Parlemanterê Elîraqiye

-Eyad Salih Mehdî, Parlemanterê Tevgera Wîfaq

-Samî Eskerî, Parlemanterê Dewleta Yasa

-Elî Zarî, Parlemanterê Dewleta Yasa

-Falih Elsarî, Parlemanterê Kotleya Mowatinîn.



Hevpeyvîn: Qadir Peyrewî

Simayîl Ercûmendî:

# Pêşmerge armancek ji pêşiya wî ye ku ew armance, amanca wî xelkî ye.



Ez simayîl Ercûmendî kurê Kerîm di sala 1347'an li gundê Sêwe Simaqa ser bi bajarê Şinoyê ji dayîk bûm. Ez her wek zarokên dinê çûm bo debistanê, heta pola yekê a paşnawendiyê min ders xwend.

Malbata me malbatekî hizbî bûn. Mameke min pêşmerge bû ku mixabin şehîd bû.

Sala 1363'ê piştî şehîdbûna mamê min, ez hatim nav refên şoreşê û bûm pêşmerge.

Dema xebata hizba demokrat bi aşkeray hate rageyendin, piştî demekî kêm rejîma xomênî êrîş kire ser Kurdistanê, êdî zulm û zoriya rejîmê dest pêkir û Kurdan çi mafeke xwe di wê rejîmê de bidestve neanî, seba vê zulm û zoriyê ez hatim bo nav şoreşê heta xwestên xwe û gelê xwe bidestve bînim.

Eva rastî ew e ku sextî ji jiyana pêşmergatiyê de zor in, eva ku dibêjin hizbayetî yanî sextî di warê jiyanê, sextî di hereketê, sextî di şoreşê de zor in, ji ber wê hinde em sextiya dikişînin ku xweşiyê bi dest bînin.

Eva ku em xebatê bo dikin armanca paşeroja em ye.

Dema em berev rûyê rejîmê dibûn, zor car hevalê me li qerax me şehîd dibûn, hestek wisa di min de pêk dihat ku heta ez mabim rêya wan şehîdan vala nehêlim.

Xelk û pêşmerge di rastî de yek in, yanî yek armanc, û yek bîr û bawer hene. Pêşmerge armancek ji pêşiya wî ye ku ew amance, armanca wî xelkî ye.

Lewra pêşmerge xweştewiyê xelkê ye, û xelk şanazî yê bi hebûna pêşmerge dike. Bi kurtî heyeta îcrayî bûm. Herwisa cîgir tîp, kumîsrê deste, û pişka teşkîlata eşkere bûm.

Di jiyana pêşmergatiyê de zor xweşî û nexweî têne ser rê, û ji ber wê hindê bîranîneke xweş û nexweş ezê ji we re bas bikim.

Di jiyana pêşmergatiyê de zor caran radiyoya dengê Kurdistana Îranê nûçeyên şer bilav dikirin, gelek caran nûçeyên nexweş bilav dikirin ku me şehîd hene, eva bîreweriyên herî nexweş bûn.

Gelek caran jî radiyoya dengê Kurdistanê nûçeyên serkevtina hêza



Pêşmerge bi ser hêza dûjmin de bilav dikir, ku eva jî bîreweriyek xweş li jiyana min ya pêşmergatiyê de bû.

bername û pirogiram û armanca wê hizbê xastekên xelkê ne, ev hizba di nav dilê wî xelkî de ava bûye, ji ber vê hindê hergav xelk pişt û penaya me bûne.

Ez sala 1363'an bûme pêşmerge, sala 1366'an bûme hevkarê kadir, sala 1367'an dewreya destpêkê a kadriyê dît, û bûme kadir. Herwisa çar salan ez bêsîmçî bûm.

Sala 1370'î de mîna kadrê teşkîlatî kar kiriye. Sala 1372'an pileya derece sê min wergirt.

Sala 1372 heta 1377'an ez endamê komîte şaristanê û

***Dema ku Dengê Kurdistana Îranê nûçeyên Şehîdbûna hevalan bilav dikir ev ji me re nûçeyên herî nexweş bûn***



## Ey ÇIYAYÊ AGIRÎ

Çi egîd hene di
sîngê te da
Çi evînan re bûyî
şahid
Serê te her tim
xemgîn, xemgîn
Ewr tije bûn

Tu mîna gula ku
BAZÎD bedew
dikir bûyî
Çûk, kêzik kevir
û ax
Di sîngê te de
radizan
Hema tenê ji min
re
Rûyê te
wergeriya yî bû
Lê min ça tu
hezkirî bû
Herkesî yarek
hezdikir
Ez ji te re
evîndar bûm
Herkes ji te
direviya
Ez dihatime te
Çima ev cihêtî
çima
ÇIYAYÊ AGIRÎ

Ebasê Bâzîdî

Hejmar 191, 21'ê Îlona 2012

# Bajarê Serdeşt ê



Mecîd Cinîkanlû

Bajarê Serdeştê yêk ji bajarên parêzgeha Urmiyê ye, ku dikeve sînorê navbera rojhelat û başûrê Kurdistanê. Serdeşt bi dar û çiyayên xwe yên ciwan dihête nasîn, herweha hewayê bajarê Serdeştê gelek xweş e.

Serdeşt ji dû pişkên serekî pêk têt, beşa Merkez û beşa Weznê, ku pişka çiyayî ew in: Alan, Bîjwe, Bask Kulse, Birîswe, Biriyacî, Bîwiran, Siflî, Milkarî, Nilas. Hijmara nîşteciyên bajar nêzîkî 120 hezar kes in, ku hemû jî kurd in.

Di gelek pertûk û belgeyan da hatiye nivîsîn ku bajarê Serdeştê cihê jidayikbûna pêxember zerdeşt e û gelek kes li ser vê baweriyê ne ku di eslê xwe de navê Serdeşt ji navê Zerdeşt hatiye wergirtin. Bajarê kevin yê Serdeştê li rex bajarê niha li rex rûbarê nêyzerû hatiye çêkirin. Gelek belge û destnivîs hene, ku li ser kevir û ketîbeyan hatine nivîsîn.

Hin nivîskar û dîrokazan dibêjin: Serdeşt ji dû peyvên (ser) û (deşt) pêk hatiye, ji ber ku li destpêka deştê de ye, ew nav danaye ser bajar. Serdeşt di dema êrîşên Ereban li ser Îranê ketiye ber êrîşa Ereban û hatîye wêrankirin. Gelek kes hatîne kuştin û bajar hatiye şewitandin ji ber ku bajarek sînorî ye, gelek caran wêran bûye.

Di gelek pertûkên dîrokî de hatiye ku Serdeşt di dema Mixulan da bi giştî carek din wêran bûye, lê dîsan xelkê ew der avedan kirîye. Herwisa gelek kel li nêz bajar û gundên derdorê hene, û eva jî nîşana vê yekê ye ku bajar hertim di metirsîya êrîşan de bûye.



***Di gelek pertûkên dîrokî de hatiye ku Serdeşt di dema Mixulan da bi giştî carek din wêran bûye, lê dîsan xelkê ew der avedan kiriye. Herwisa gelek kel li nêz bajar û gundên derdorê hene, û eva jî nîşana vê yekê ye ku bajar hertim di metirsîya êrîşan de bûye.***

Di Sala 1900'î a Zayînî de, bizavên kurdî hêdî hêdî serî hildane û dijî dagîrkeran şer kirine. Herêma Serdeştê jî ji ber cihê xwe yê sitratîjî û şiyanên parastina xwe, cihek gelek xweş ji bo berxwedana şoreşgêrên kurd bûye.

Li Serhildana Simkoyê şikak ve bigire heya şerê salên 1980'î yê partiyên kurdî dijî dewleta Îranê, herdem Serdeşt cihê xwe yê taybet hebûye, ji ber hindê jî rejîma Îranê gelek serbazxane di bajar û derdora bajar de çêkirine û bi rêkên cuda cuda hewil dane ku pêşiya bizavên kurdî bigirin.

Di dema ku şerê Îraq û Îranê li salên 1980–1988'ê çêbû, herêma Serdeştê gelek xisar dît, û Serdeşt kete ber êrîşa kîmyabaranê û gelek jin û zarok û mirovên bê tawan canê xwe ji dest dan. Ev kîmyabarana xelkê sivîl yê Serdeştê haya îro rojê jî li ser ceste û sirûşta bedw ya Serdeştîyan xûya dike û gelek birîndarên wê karesatê hene, ku heya îro rojê jî, ji aliyê dewletê ve tu alîkariyek bi wan re nayê kirin, û gelek belengaz bi derd û êşên xwe dimirin.

Di herêma Serdeştê de gelek cihên bedev û xweş hene ku gelê herêmê û Îranê, rojane serdana wan cihên xweş dikin û demekî xweş li nav xwezaya ciwan û rind ya Kurdistanê de derbaz dikin, Sûlava şelmaşê ku ava vê diçe nav rûbarê Zapê, her Sal bi hezaran kes li navend û bakûrê Îranê seredana vê sûlavê dikin û demên xweş li wir derbas dikin. Kaniya girawan, Geliyê bêwiran û bi sedan daristan û geliyên xweş yên din li vê herêmê hene ku bûne cihekî baş ji bo dahata xelkê herêmê.

Serdeşt bajarekî gelek kevin û dîrokî ye û her seba vê yekê jî gelek cihên kevin li bajar û herêmê de hene ku dîroka hin ji wan ji bo berê zayînê vedigere.

Kela Serdeştê ku dikeve ser çiyayê nêzîk bajar, hêj gelek ciwan maye û têk neçûye û li ser gelek keviran nivîsînên bizimarî dîyarin, ev nivîsîne jî nîşana vê yekê ne ku Serdeşt bajarek gelek kevn e.

Di sala 1993'an a Zayînî de girûpek ji lêkoleran li Alman li gel zankoyek Îranî seredana wan cihên dîrokî kirin û lêkolîn li ser wan û nivîsan kirin, piştî wan lêkolînan derket, ku di dema Împeratoriya Mêdîya de xelk di vî bajarî de jîyane.

Gelek Kelên biçûk jî nêzîkî bajar hene, pir nivîsên ser kevir li derdora bajarê Serdeştê diyar in, lê mixabin rejîma Îranê qet û bi çi awayekê li ser wan şûnwarên Kurdan lêkolîn nekirîye û gelek caran rijêma Îranê asevarên dîrokî ku peyda bûne bi talan birine.

Çandin û bazirganî karê serekî yê nîştecyên bajarê Serdeştê ye, bi taybetî ji ber nêzîkbûna wê li gel Îraq û başûrê Kurdistanê, xelk bi rengên cudacuda karê bazirganyê dikin.

Hebûna avek zêde li Serdeştê jî ev derfet ji xelkê ra dirust kiriye, da ku bikarin bi rengek gelek baş çandinê bikin.



# Astengên Sînema û Sînemakaran



A: Eskender Ceiferî

Her li destpêka hatine serkara Rejîma Komara Îslamiya Îranê ve givaşên ji aliyê desthilatê ve bo ser hunermendan roj bi roj zêde bûn.

Di destpêkê de wisa dihat xuyakirin, ku Xumeynî naxwaze pêşkeşkarên keç an jin hebin û mêran jî li Televîzyonê de hema dikarîn bi awayekî bêne xuyakirin ku bi gotina Rejîmê kinc û peyvînên wan tevlî rewşên Îslamî dijatiyê tunebin!

Her ew rewşe bi ser sînema û sînemakaran de jî dihat meşandin. Di sînemayê de fîlmên ku bi gotina rejîmê, hîcab têde nehatiye bikaranîn, mafê weşandinê çinîne û heya tê, ew rewş bi ser Sînemayê de pir girantir dibe.

Ji aliyek din ve, ev sînemakar û rexnegirên sînemayê ku rexneyê ji desthilat û yasayên sînemayê digirin, dikevine jêr givaşê û mafê gelek tiştan ji wan tê sitandin.

Mêhran Mudîrî, heneksazê Îranî ji bo ku di Fîlma xwe a naskirî bi "Şebhayê Bererê" angu Şevên Berereyê de bahsa ji Şah û ji ser kar birina wî û hatina desthilatek nû bi zimanê Henekê kiribû, ji sîma angu Deng û Rengê fermî hate bê parkirin. Piştî demekî ku Mudîrî, Heneka xwe a bi navê "Qehwêyê Telx" wate "Qehweya Tal" çê kir, car din tevî belavkirina wê berhemê li Deng û Rengê fermiya Komara Îslamî Muxalîfet hatekirin û Mêhran bi neçarî, berhema xwe kire DVD û derxiste Firotingehên Fîlman.

Hin ji çalakên warê Sînemayê li ser vê bawerê ne ku Îkran wate derketina fîlmê bo cara yekê, ji serketirîn astengên li hember çalakên warê sînemayê ne. Hin ji sînemakaran heya qasekî ji îkrana fîlmên wan re arîşe tên tiraşîn ku mecbûr dimînin weke "Mistefa Kiyanî" ê Sînemakar, li rojek taybetî de bo mînak cejna Remezanê, wê fîlmê derxin holê, heya ku bikaribin ji xwe re dahatekî kêm, an jî xerca fîlmê car din bi destve bînin.

Ew givaşên ji aliyê nawendên pêwendîdar ve bo ser sînemayan heya qasekî ye ku çalakvanên çandî nikarin civînên xwe ên çandî û Wêjeyî, bi bêy îzna Îdareya Ferheng û Îrşada Îslamî angu Îdareya Çandî û Rêniwîniyên Îslamî li holên sînemayan û salonên Amfî tiatran de birêve bibin.

Di demên dawiyê de gelek ji çalakên warê Tiatr angu Şanoyê ji çoyîna bo nava sînemayê û leyîstin di nava fîlmên sînemayî de veqetiyan. Ev yek jî bi sedema vê yekê bû ku ev xebatkarên warê Tiatrê, dema ku xwastin biçin nava sînemayê de, ji aliyê hewzeya huneriya Tehranê ve bi wan re hate ragihandin ku divêt di dewreyên fêrkariyên sînemayê de beşdar bibin û piştî ku evna karî di Ezmûnê de serkeftinê bi destve bînin, dikarin biçine nava sînemayê de, û di fîlmên sînemayî de bi awayek fermî bileyîzin.

Eva jî di demekî de ye ku kesên ku dixwazin xebata sînemayî bikin, heke girêdayî navendên hikûmî angu navendên weke "Bunyadê Şehîd" û "Difaê Muqeddes" bin, dikarin ji bo li hevanîna fîlmên pêwendîdar digel Siyasetên rejîma Îslamî a Îranê, bibin xwediyê hewcehiyên weke Şehrekên Sînemayî û li giştî îmkanatan Mifahê wergirin û di dema derketina fîlmê de jî gelek rêz ji wan tê girtin, û bi giştî ew derhînerên ku karê Siyasî di berjewendiya rejîmê de dikin, dibin xwediyê sirwet û dahatek bê mînak.

Hin ji rexnegirên sînemayê li ser wê bawerê ne ku siyasîkirina sînemayê, bûye egera viya ku îdî meyla sînemakaran ji bo derxistina fîlman kêm bibe, ji ber ku derhînerek ku dixwaze fîlmekî bi berhem bîne, ji xwe piştrast e ku heku ew fîlm rexnegirê Hikûmetê be, wê digel arîşan berbirû bibe.

Li gor gotina Navendên Hikûmî, ew derhînerên ku bi dîjî Hikûmetê dixebitin, ji ewlehiya netewî re metirsîdar in û divê pêşiya çalakiyên wan bê girtin.

Sansor jî yek ji astengên berbirûyê derhîneran e ku navendên pêwendîdare hukûmî jêre dibêjin Mumeyêziya Sînemayê. Dema ku Derhînerek, Fîlmekî bi berhem tîne, heke ew fîlm li jêr Sansor angu Mumeyiziyê derbas bibe, wê darêjtina fîlmê bi giştî tev hev bibe, û derhîner nekare mebesta xwe a sereke bigehîne. Gelek ji fîlmên derbasbûyî ji navenda sansor an Mumeyiziyê de, çîroka xwe a sereke ji dest dane, û bi vî awayî ku berhemhîner daxwazkarê firotina fîlmê bûye, ew fîlm nayê firotin.



OSMAN BEYDEMIR:

## Zarokên Kurd şerm e ku Kurdî nezanin

**Osman Baydemîr serokê şaredariya Amedê dibêje ku heke "zarokên min bi min re Kurdî nepeyîvin, giriya min tê."**

Li gor "TRTTURK" Baydemir ji bo dersa Kurdî dest bi gavan kir, û div ê çarçoveyê de 35 zarokên ku temenê wan ji di navbera 3-6 salan de ne, dê werin perwerde kirin. Qîzîka Baydemir, Ranya'ya 5,5 salî jî dê di nav dersxwanan de cih bigre. Baydemir demek berê, pergala perwerdeya dersan rexne kiribû û gotibû ku zarokên min bi min re Kurdî neaxivin. Eyb û zilm e. Divê ev asîmîlsayon êdî bisekine."

Di demên bihorî de gelek givaş ji bo ser nivîskar û çalakên wêjeyî li Kurdistana Turkiyeyê de hebûne, lê hin çalakên Siyasî ji bo ku dersa Kurdî bê avavkirin, ji berîka xwe xeric dikin.



### Kaniya helbestan



### Xatirê te...

Ji bo evîna me ez vê helbesta dawî dinivîsim
Ez dixwazim bi vê helbestê te bîr bikim

Dibêjin ku tu dibî rêwî
Bê gûman ez ê jî bibim sêwî

Ji bo evîna me ez vê helbesta dawî dinivîsim
Ez dixwazim bi vê helbestê te bîr bikim

Dibêjin ku tu dibî rêwî
Bê gûman ez ê jî bibim sêwî

Dixwazim çend hêsrên çavan birjînim
Mixabin nikarim bigrîm

Li min wisa nenêre
Mesekine here
Êdî ne ji min hez bike ne jî min bifikire
Tu dizanî...

Wateya evînê te bi min da fêm kirin
Bi gotinekî te reng da jiyana min

Niha jî tu diçî
Lê bizanibe! Ez dibim nîvkuştî
Tu dizanî...

Dilê min ji min xeyidiye
Ji bo te deriyê xwe vekiriye
Xuya dike ku bi hêvî ye

Ez newêrim jê re rastiye bêjim
Ji ber ku ez dilê xwe nas dikim

Bila fêm neke ku êdî tu jê hez nakî
Ji xwe bê hebûna te xwîn vedirşe

Naxwazim dilê min bibihîse
Ji ber ku ji wendabûna te pirr ditirse
Bizanibe ku...

Min ji te hez kir
Ez ji te hez dikim
Ez ê ji te hez bikim
Xatirê te...

Çavkanî: nivîskar.com

# Agirî

**Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye**
**Ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne**

**www.kurdistanmedia.com/kurdi**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:**
**AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE**
**E - Mail: agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com**





Dr. Serefkendi tu wek çiya serbilindi



# Keyfxweşî û giriya piştî biryara dadgeha Mîkonosê

